Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 94
31'ê Tebaxê
Buha: 150 Tûmen

# agirî

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Pîrozbahî

Îsal jî Roja Aştiyê hat, lê mixabin hêj di gellek welatên cîhanê de, şer, pevçûn û alozî dom dike. Li Kurdistanê, zilm, zordarî û siyasetên asîmîlekirin û jinavbirinê ji aliyê dewletên dagirker ve her dimeşin. Gelê Kurd îsal jî Roja Aştiyê bi xemgînî û dilşikestî û bi êş û eleman re pîroz kir. Roja Aştiyê pîroz be. Bi hêviya cihgirbûna aştî, aramî û tebahiyê li seranserî cîhanê.

**Desteya Weşana Agirî.**

### Girtiyên Siyasî Ên Kurd Di Girtîgehên Komara Îslamî A Îranê De Dest Dan:

# GİREVA BİRÇÎBÛNÊ




Girtiyên siyasî û ramanê û çalakên sivîl ên Kurd di gişt girtîgehên Îranê de, bi derkirina daxuyaniyekê, ji roja duşem, 25'ê Tebaxa 2008'an, bi awayekî seranserî dest dan gireva birçîbûnê.

Zêdetirî 100 girtiyên siyasî ên Kurd tevlî gireva han birçîbûnê bûne û dixwazin bi wê helwesta xwe, bala cîhanê bikşînin ser pêvajoya xurt û sîstematîk a binpêkirina mafê mirovan li Îranê, nemaze zext û givaşên ser çalakên sivîl û siyasî ên Kurd.

Zîndaniyên siyasî ên Kurd di daxuyaniya han de ragihandine ku gireva han bona pirotestokirina desthilatê û agahdakirina raya giştî ji rewşa girtîgehan û zîndaniyên siyasî û sivîl yên Kurd hatiye rêxistin.

**Dom:rûpela 2**

## Xelkê Mehabadê Di Meşekê De, Piştevaniya Xwe Ji Gireva Girtiyên Siyasî Yên Kurd Diyar Kirin



Komîteya piştevanîkirin ji girevgirtina çalakên siyasî û sivîl yên Kurd, ragihand ku roja şemî, 30.08.2008'an, xelkê bajarê Mehabadê, bi armanca diyarkirina nerazîbûna xwe derheq hebûna zext û givaşan li ser girtiyên Kurd û piştevanîkirin ji gireva birçîbûna zîndaniyên siyasî û sivîl yên Kurd, gişt dukan û bazarên xwe heya demjimêr 11'ê sibê daxistin.

Her wiha seet 9:20 sibê, xelkê bajarê Mehabadê, di meşeke nerazîbûnê de li hember Dadgeha Şoreşa Îslamî a vî bajarî civiyan.

Her çend ku hêzên rejîmê jî li hember Dadgeha Şoreşê amade bûn û gefa kontrolkirin, wênegirtin û binçavkirinê li xelkê dikirin, lê xelkê welatparêz yê bajarê Mehabadê, meşa xwe têk nedan û dengê xwe yê nerazîbûnê gihandin desthilatdarên rejîma Komara Îslamî a Îranê.

Her wiha malbatên girtiyên siyasî di daxuyaniyekê de, daxwaz ji hemû çîn û qatên xelkê bajarê Sine kirin ku roja dûşem, 1'ê Îlona 2008'an, ku hevberî Roja Cîhanî ya Aştiyê ye, li hember deriyê Dadgeha Şoreşa bajarê Sine bicivin û bi wî awayî nerazîbûna xwe diyar bikin û daxwaza serbestberdana girtiyên siyasî ên Kurd di girtîgehên Komara Îslamî a Îranê de bikin.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Bi Boneya Gireva Birçîbûnê A Seranserî Ya Girtiyên Siyasî Ên Kurd

**Hevwelatiyên rêzdar!**
**Azadîxwazên Îranê!**
**Kom û komeleyên mirovhez ên alîgirê mafê mirovan!**
**Xelkê xweragir yê Kurdistanê!**

Li gor daxuyaniyekê ku girtiyên siyasî ên Kurd belav kirine, îro, duşem, 25'ê Tebaxa 2008'an, hevberî 4'ê Xermanana sala 1387'an a Rojî, çalakên siyasî yên Kurd di zîndanên rejîma Komara Îslamî li seranserê Îranê de, bi nîşana bêzarî ji rejîmê û gehandina dengê xwe bi raya giştî û kom û komeleyên mirovdost, dest dane girevgirtineke giştî a birçîbûnê.

Wan keç û xortên siyasî ên Kurd di daxuyaniya hejmar 1 a xwe de ku îro duşemê, hate belavkirin, nêrîn, helwêst û armanca xwe bi ronî û eşkere xuya kirine û siyaset û kiryarên dijî mirovî ên rejîmê rûreş û şermezar kirine.

Di vê derbarê de, PDK Îranê serbarê




piştevanî û piştgirî ji wê gireva nerazîbûnê û xwestek û daxwaziyên wan, silavan ji yek yekê van keç û xortên xweragir û qehreman ên Kurd re dişîne ku girtîgeh jî kirine qadeke din a xebat û berxwedanê li hember dîktatoriyê û rêz û hurmetê ji helwêsta biwêr û yekîtiya wan re digire.

Di heman demê de, em daxwazê ji civatên xelkê Kurdistanê, kom û komeleyên mirovhez û alîgirê mafê mirovan dikin ku dengê nerazîbûna çalakên siyasî ên Kurd di girtîxaneyên Îranê de dibihîsin û di wê helwestgirtinê û nîşandana nerazîbûnê de wan bi tenê nehêlin.

Em hêvî dikin navend û kom û komeleyên mirovdost li hundir û derveyî welat bi nîşandana nerazîbûnê li hember liv û tevgeriyana rejîma Komara Îslamî li hember çalakên siyasî ên Kurd, çavnihêriyên van girevgirtiyane û xelkê Kurdistanê bînin cî.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**25.08.2008**
**04.06.1387**

---

**Girtiyên Siyasî Ên Kurd Di Girtîgehên Komara Îslamî A Îranê De Dest Dan:**

# Gireva Birçîbûnê

**Doma rûpela 1**

Yek ji zîndaniyên siyasî û sivîl yên Kurd tevî îşarekirin bi zext û givaşên xurt ên desthilatê derheq zîndaniyên siyasî û sivîl yên Kurd û her wiha mehkûmkirina 8 çalakên siyasî yên Kurd bi cezayê îdamê, armancên girevgirtina han bi awayê jêrîn anî berbas:

1- Pejirandina nasnameya sivîl û siyasî ya girtiyên Kurd û meşandina liv û tevgerên baş tevî wan ji aliyê desthilatê ve

2- Pêdeçûnkirina dewletê derheq dana îdamên bikom û sekinandina gişt biryarên îdamê li dor girtiyên siyasî yên sivîl

3- Dawîanîn bi îşkence, azar û tevgerên hovane li hember gişt girtiyan

4- Bidawîanîna ferq û cudahiyan derheq gişt girtiyên sivîl û siyasî

5- Gişt zîndanên Îranê bê hebûna tu sînorekê, bikevin bin çavdêriya saziyên mafê mirovan di navxwe û derveyî welat de

6- Dezgehên dadwerî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê divêt di pêxema dabînkirina bingehên mafê mirovan û liberçavgirtina dadmendiyê, reformên bingehîn di yasayên xwe de pêk bîne

Girtiyên siyasî û sivîl ragihandin ku dê heya asta mirinê li ser daxwazên xwe îsrarê bikin. Rayeleya (şebeke) Mafê Mirovan li Kurdistanê her wiha ragihand ku niha 8 çalakên sivîl û cudabîr yên Kurd bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin ku navhatî ne ji:

1- Ednan Hesenpûr(rojnamevan)

2- Hîwa Botîmar(rojnamevan û çalakê sivîl)

3- Enwer Husênpenahî(mamosta)

4- Ferhad Wekîlî(çalakê sivîl)

5- Ferzad Kemanger(çalakê mafê mirovan û çalakê sivîl)

6- Elî Heyderiyan(çalakê sivîl)

7- Eerselan Ewliyayî(çalakê sivîl)

8- Hebîbulah Letîfî(xwendekar û çalakê sivîl)

Her wiha ev 7 çalakên Kurd bi cezayên giran hatine mehkûmkirin:

1- Mihemedsidîq Kebûdvend, çalakê mafê mirovan bi 11 sal cezayê zîndana teezîrî hatiye mehkûmkirin

2- Hana Ebdî, çalaka mafê jinan, bi 5 sal cezayê zîndanê û dûrxistinê ji bo Azerbayana Rojhilat hatiye mehkûmkirin

3- Zeyneb Bayezîdî, çalak mafê mirovan, bi 4 sal cezayê zîndana teezîrî û dûrxistin ji bo bajarê Zencanê hatiye mehkûmkirin

4- Fatime Gofarî, çalaka mafê jinan, bi 18 meh cezayê zîndanê hatiye mehkûmkirin

5- Emîrriza Erdelan, xwendekar bi yek sal cezayê zîndanê hatiye mehkûmkirin

6- Elî Şakirî, xwendekarê Kurd, 2 sal û şeş meh girtîgeha teezîrî jê re hatiye birrîn

7- Sohrab Celalî, çalakê sivîl, niha di halê qetandina cezayê xwe di girtîgeha Kaşmerê de ye.

Her wiha 13 çalakên Kurd yên din di girtîgehê de ne ku tu nûçeyek derheq çarenivîsa wan li berdest nîne

1- Yasi Gulî, çalakê xwendekarî – li benda biryara dadgehê ye-



2- Kawe Cewanmerd, rojnamevan di girtîgeha Meraxê de ye

3- Hidayet Xezalî, çalakê xwendekarî

4- Sebah Nesrî, çalakê xwendekarî

5- Ronak Sefazade, çalak mafê jinan – li benda biryara dadgehê ye-

6- Areş Elayî, bijîşk – çarenivîsa wî ne rohn e-

7- Mesûd Kurdpûr, rojnamevan û çalakê mafê mirovan – di çarenivîseke nerohn de ye-

8- Kamran Elayî, bijîşk, di çarenivîseke nerhon de ye

9- Xidir Resûl Mirwet, xwendekar, çarenivîsa wî hêj nerohn e

10- Salar Yare, xwendekar di çarenivîseke nerohn de ye

11- Ferhad Hacîmîrzayî, çalakê mafê jinan û zarokan di çarenivîseke nerohn de ye

12- Saman Babayî, çalakê sivîl û mamostayê Kamyaranê, li halê derbazkirina biryara xwe di girtîgehê de ye

13- Mihemed Kebî, çalakê sivîl – di çarenivîseke nerohn de ye.

# Kêmkirina Radeya Tundî Yan Heke Çê Be Tunekirina Nexweşiyeke Kurdane

Mistefa Hicrî

Qirar e di rojên 17, 18 û 19'ê meha Çiriya Pêşîn a îsal de, kongreyek ji bo bas û nîqaşkirin li ser pirsa Kurd ji nûnerên tim partiyên siyasî ên her çar parçeyên Kurdistanê, kesayetiyên welatparêz ên kurd li tarawge (sirgûnê), komek akademîsyen û şarezayên pirsa Kurd û Rojava û... bihê lidarxistin.

Heyameke zaf e ku girûpek ji bo cîbicîkirina vê armancê dixebitin, bi aliyên cuda cuda re pêwendî girtine û hinek amadekarî jê re kirine. Her çiqas meşandina van cure kombûn û civînane di asteke navneteweyî de, bona bas û nîqaşkirin li ser pirsa siyasî a Kurdan li Hewlêra Paytexta Herêma Kurdistanê, ew nigeraniyê ji me re pêk tîne ku di dema dawî ya lidarxistina wê komcivînê de, bi sedema komplo û pîlan û zext û zora neyarên Kurdan ve hilweşe, lê heke ser bigre jî, renge yekemîn komcivîna ku bi vî awayî li Hewlêrê bibe, di warê siyasî ve, girîngiyek taybet bixwe heye. Şanda nûneriya Partiya Demokrat jî yek ji heyetên beşdar dibe û ji niha ve bona li stûgirtina her erkekê di vê derbarê de ku dikeve ser milê wê, amadebûn xwe dayiye xuyakirin.

Ewa ku di vê nivîsarê de ez dixwazim binivîsim û min tevî endamên desteya amadekar jî bas kiriye, pêşniyarek e ji bo kêmkirina radeya tundî an heke çê bibe tunekirina nexweşiyeke kurdane ye ku salên dûr û dirêj e berçêla me tev aliyekê girtiye û heta niha jî bi me re ye. Bi salane di nav partiyên Kurdî ên hemû parçeyên Kurdistanê de cudabûn û veqetiyan çê dibin, girûpek an çend kes bi sedemên cur bi cur ji partiyan vediqetin û partiyeke din bi navnîşaneke din pêk tînin, kar û têkoşîna xwe li gor bername û siyaseteke nû ku ji xwe re diyarî kirine, pêşde dibin û awayek ji xebatê bona pêşdebirina doza rewa û berheq a Kurd digirin pêşberî xwe. Heta vira bûyer her çiqas ne cihê hezkirin û pêxweşbûna me jî be, lê xweş an nexweş ewa rastiyek e ku di welatên pêşverû û demokratîk de jî diqewime.

**"em hemû wê pirensîpa nîştimanî bipejirînin ku niha pey re her girûp û desteyek ku ji partiyekê vediqete, di bin her hêcet û mihaneyekê de be, mafê vê yekê tune be ku ji nav û sembolên partiya eslî mifahê werbigire"**



Lê qebahet û trajedî demekê çê dibe ku girûpa han ku cuda dibe – ku herdem kêmanî ye – hemû navnîşan û sembolên partiya rasteqîn ku jê veqetiyaye, dagir dike û ne amade ye di bin naveke din de xebat û têkoşîna xwe bidomîne. Ev rewşe di dîroka gellek patiyan de yê bûye encama wan şerên birakujiyê ku me hemûyan dîtiye û bihîstiye. Ziyan û xesarên mirovî ên van cure cudabûnane hinek caran nêzîk xesar û zirarên êrîşên rejîman bo ser xelkê Kurdistanê dibin, lê bêguman pirr caran xesarên hundirîn û têkildar li hember ew xesarên ku ji aliyê rejîman ve rastî me bûne, zêdetir e. Xwe heke wiha jî nebûye, aliyê kêm ê bûye sedema vê çendê ku ew du alî li cihê gotûbêj û alîkariyan li dijî dijminê Kurd ku dijminê hevbeş e, hevdu şikandine, derbasbûyiya hevdu tune kirine, heta xala wisa hebûye ku pêwendiya nexweş a navbera wan yê bûye astengek li ser rêya alîkarî û danîna pilan û projeyên hevbeş di nava partiyên kurdî ên parek ji parçeyên Kurdistanê de.

Pêşniyara min ewa ye:

Yek ji xalên berbas ên ew komcivîna ku li pêşberî me ye, ewa be ku em hemû wê pirensîpa nîştimanî bipejirînin ku niha pey re her girûp û desteyek ku ji partiyekê vediqete, di bin her hêcet û mihaneyekê de be, mafê vê yekê tune be ku ji nav û sembolên partiya eslî mifahê werbigire, belkî divêt di bin navekê de têkoşîna xwe bidomîne ku bi tevahî tevî nav û nîşanê partiya eslî û sereke cihê be.

Heke girûpa han pêbendê van pirensîpan nebû:

1. Tu yek ji partiyên parçeyên Kurdistanê, pê re têkiliyan çê nekin.

2. Tu partiyek din hevkariya pere (diravî) bi wan re neke.

Renge di destpêkê de ev pêşniyare weke daxwazeke awarte(îstîsna) were berçav, lê ez erxayîn û piştrast im ku meşandina vê siyasetê û îsrarkirin li ser praktîzekirina wê dikare alîkareke baş be ji bo kêmkirina cudabûnan û ziyan û xesarên wan.

Rastiya wê ewa ye ku ji nêrîna hikûmetan ve partiyên Kurdî hemû îlegal (neqanûnî) in, lewra tu mehkemeyeke adîlane a bêalî tune ye ku di dema hewce de em penahê jê re bibin û bigihîje dada me. Madem wilo ye, divê em hizr û ramana xwe rohn û zelal bikin, belku ji vê rêyê ve em bikarin ziyan û xesarên nava rêxistinên siyasî bigihijînin aliyê herê kêm ên wê û hêviyeke nû jî bidin gelê xwe, ew xelkê ku xebat û berxwedana me bona bexteweriya wana ye, me bi cudabûnan û bandorên nedilxwaz ên wan, dilê wan birîndar kiriye û gellek caran jî me ew bêhêvî kirine.

Heke wisa nebe û weke berê her girûpek ku cuda bûye, hemû aliyek di pêşwaziyê de be û ev û ew alîkariya pere (dirav) pê re bikin, li cihê wê yekê xebata partiyan di xizmeta pêşdebirina armancên gel de be û dibe dikandarî û sedem û bingehek ji bo jiyanê. Di rastî de ewa ku heta niha hatiye kirin, haydaneke ne rasterast bûye ji bo parçe parçekirina partî û rêxistinên siyasî û bi vî awayî bêhêzkirina wan ku bi şik û guman xwesteka hikûmetên dagirker e û ji bilî wan kes berê wê nadirû.

Bila em hemû bi hev re hêlên sor diyarî bikin û ji wan derbaz nebin.

**Jêder: Malpera Sekreterê Giştî yê PDKÎ, www.sikirter.org**

**"divê em hizr û ramana xwe rohn û zelal bikin, belku ji vê rêyê ve em bikarin ziyan û xesarên nava rêxistinên siyasî bigihijînin aliyê herê kêm ên wê û hêviyeke nû jî bidin gelê xwe"**

# Bizava Neteweyî A Kurd Ji Nêrîna Dîroka Siyasî Ve

**Beşa 6**

**Bêhzad Xoşhalî ***
**Wergeran ji Farsî/ Omîd Esxeran**

Ne bêwate ye ji bo kesekê ku di zîndanê de ji dayîk dibe, sirûda Xwedêyan, Hawar, Azadî, Serbestî û azadîxwazî be. Kesek ku li êxsîriyê jidayîk bû, lê azad jiya, bi lehengî û qehremanane berxwe da û di encam de jî, berxwedan li hember zulm û zoriyê ji bo keç û xortên xwe bicî hêla, hetanî demekê ku piştî zêdetirî sed sal berxwedanê, beşek ji Kurdistanê weke herêma Federal bi cîhana îro re da pejirandin û nasand. **Mela Mistefa Barzanî** li gor gotina mamosta Hejar, sembola berxwedan ji bo gihîştin bi azadiyê ye û li gorî gotina Pêşewa Qazî Mihemed jî, sembola şeref, lehengî, camêrî, jêhatîbûn û azadîxwaziyê bû. Bêguman Mela Mistefa Barzanî û exlaqê wî derheq tekezkirin ji bo domandina xebatê di heyamê nêzîk sed salan de, yek ji bûyerên bêmînak di dîroka neteweya Kurd de ye.

Kiryar: Bizava Mela Mistefa Barzanî
Sebeb: Mela Mistefa Barzanî, eşîra Barzan û Partiya Demokrt a Kurdistanê
Biyav:
A) Dem: Destpêka sedsala bîstan heya niha
B) Cih: Başûrê Kurdistanê di Îraqê de û Herêma Komara Kurdistanê

Alav: Tevgera çekdarî, tevgera giştî û dîplomasiya siyasî
Armanc: Avakirina dewletek serbixwe li herêmên Kurdakincî di Rojhilata Navîn de

Nîşan: Herêma Barzan li Başûrê Kurdistanê ku ketiye nava herêma federala a Kurdistanê, cihê jiyana eşîra Barzan e. Mezinên Barzan, ji şêxên olî yên Başûrê Kurdistanê û kesayetiyên mezin ên ola Îslamê di herêma han de bûne. Ji ber vê çendê cîgeha olî a mezinên Barzan, hêzek siyasî – olî a bibandor ji bo wan pêk aniye û yek ji sedemên girîng ên beşdariya tevalî a eşîra han di dîroka xebatê de bûye. Herêma Barzan ji wan herêman e ku berî avakirina Îraqê heya desthilatdariya koloniyalîzma Birîtaniyayê û di encam de pêkanîna çarçoveyek siyasî a bi navê Îraqê ji Kurd, Erebên Sunî û Erebên Şiî, tucar dest ji xebat bona gihîştin bi serxwebûnê hilnegirtine û ji wê demê pey re heya niha aliyê kêm şeş caran hatiye wêrankirin. Mela Mistefa Barzanî weke rêberên olî yên weke Şêx Ebdulselam û wd, ji salên berê heya ragihandina serxwebûna Îraqê, evraz û nişîvên zaf ji bo gihîştin bi azadiyê şopandiye. Berxwedan di pêkhateya eşîran li hember kolonyalîzma Birîtaniyayê, domadina xebatê piştî avakirina dewleta Îraqê, beşdariya berbiçav li Komara Kurdistanê bi rêberiya Pêşewa Qazî Mihemed, derbazkirina qonaxeke dûrxistina bi zorî li Yekîtiya Soviyet a berê, vegerîn ji bo Îraqê û domandina xebata çekdarî û siyasî di çarçoveya Partiya Demokrat a Kurdistanê de, peyaman 1975'an a Cezayîrê û qels û jinavbirina hêza çekdarî hetanî sala 1979'an, mirina li sirgûnê û wd..., di encam de serhildana mezin a sala 1991'an a Başûrê Kurdistanê piştî êrîşa hêzên hevalbend bo ser Îraqê heya ragihandina federalîzma Îraqê di sala 2005'an, mînakên baş in bona nîşandana evraz û nişîvêna vê xebatê. Herêma Kurdistanê niha di bin desthilatdariya Mesûd Barzanî, kurê Mele Mistefa de ye.

Taybetmendiyên tevgerê:
1- Cur a awayê fikirîna bihêz a olî li cem eşîra Barzan
2- Beşdariya olî - eşîretî li cem Barzaniyan
3- Hêza kevneşopî û karîzmatîk a Mele Mistefa Barzanî
4- Taybetmendiyên coxrafiyayî ên devera Barzan û nebûna derfeta mifahwergirtin bona armancên leşkerî ji bo dewleta Îarqê bona tepeserkirina bizavê
5- Baweriya tewaw a Mele Mistefa Barzanî ji bo bihev re girêdayîbûna pirsa Kurd li Bakur, Rojhilat û Başûr, bê liberçavgirtina sînorbendiyên siyasî
6- Hatin bo nava Komara Kurdistanê di sala 1946'an ji bo piştevanî û alîgirîkirin ji Komarê bi rêberiya Pêşewa Qazî Mihemed û hilbijartina wî weke yek ji çar generalên arteşa Kurdistanê
7- Berxwedana çekdarî li hember hêzên arteşa Îranê di serdemê Komarê de
8- Teslîmnebûn li hember hêzên arteşa Îranê û gihîştin bi sînorên Yekîtiya Soviyet a berê
9- Avakirina Partiya Demokrat a Kurdistanê û rêxistina nû a siyasî – leşkerî
10- Domandina xebatê, hevdem tevî çalakiyên dîplomatîk di dawiya dehsala 50'an a Zayînî de heya dawiya dehsala 70'an
11- Pêkanîna herêma nîv otonom li Başûrê Kurdistanê di wê demê de
12- Gotûbêjên siyasî li cem xebata çekdarî tevî dewletên yek li pey hev ên Îraqê
13- Dîplomasiya çalak a navneteweyî û li serveyî wê, mifahwergirtin ji arîşe û pirsgirêkên di pêwendiyên Îran û Îraqê de ji bo baştirkirina cîpiyê xwe û hewl ji bo gihîştin bi armnacan
14- Domkirina bi xebatê di heyameke dirêjheyam li Rojhilata Navîn de
15- Ragihandin û pesendkirina Hikûmeta Federal a Kurdistanê tevî Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê piştî sala 1991'an û di doma wê de jî guhartina yasaya bingehîn a Îraqê di sala 2005'an ji bo pejirandina federalîzmê di wî welatî de
16- Neteweparêziya Kurdî di heyam tejî evarz û nişîv a xebatê de

Mela Mistefa Barzanî piştî hiloşandina Komara Kurdistanê ji aliyê rejîma Îranê ve, hêzên xwe ji Mehabadê heya qiraxên çemê Eres û nêzîk sînorên Yekîtiya Soviyet a berê gihand û di encam de neçar bi pejirandina qonaxeke dûrxisitina bizorî bo heyamê 10 salan di welatî de bû. **Meryem Fîroz**, hevjîna **Nûredîn Kiyanûrî**, Sekreterê Giştî yê Partiya Tûde a Îranê, di yek ji hevpeyvînên xwe de dibêje: "Di nava piraniya rêberên dûrxistî ên cîhanê de ku li Moskovê dûrxistina xwe derbaz dikirin, tenê Mela Mistefa Barzanî mafê penaberiyê wernegirt û debara jiyana xwe ji paqijkirina heftane a lojmanan (apartiman)li Moskovê dabîn dikir. Bi nêrîna min, navhatî jêhatîtirîn rêberê siyasî bû ku serbarê pêşniyarên bêmînak ên Rûsan, tewr(heta) yek gav jî ji armancên xwe dûr neket".


*** Iêkolînvan û nivîskarekî ciwan yê Rojhilatê Kurdistanê**

Mela Mistefa piştî guherîna hikûmetê li Îraqê di dawiya dehsala 50'an a Zayîn de, vegeriya Îraqê û rolê siyasî yê xwe weke rêberekî siyasî li stû girt. Di sala 1966'an de, Celal Talebanî tevî hin endamên din ên Partiya Demokrat a Kurdistanê ji vê partiyê veqetiyan û bi raghandina cudabûna xwe, Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê ava kirin. Piştre du partiyên han, anku Partiya Demokrat a Kurdistanê û Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê, weke leyîstvanên sereke di qada siyasî a Kurdistan û di dawiyê de li Îraqê, xebata xwe meşandin. Peymana sala 1975'an a di navbera Îraq û Îranê de ku tê de Îranê dev ji piştgiriya ji Barzanî li hember desthilatdariya wî welatî bi ser çemê Ervendrodê de berdabû, weke mezintirîn derbe ji vê partiyê tê hesibandin. **Îsa Pêjman**, efserê ku di navbera Mela Mistefa Barzanî û Şayê Îranê de dixebitî, peymana Cezayirê weke mezintirîn îxaneta dewleteke ji girûpek xebatkar di heyam dîrokê de dizane, eger çi bixwe jî îfadê bi vê çendê dike û dibêje: "Me tenê bo heyama sê rojan, alav û hewcehiyên leşkerî liber destê Mela Mistefa û hêzên wî de didanîn, çunku ew ne tenê ji bo Îran û Îraqê, bulku ji bo tevahiya Rojhilata Navîn gefek bû".

Piştî wajokirina peymana 1975'an, hêzên Barzanî hatin bo Îranê û weke kesên dûrxistî li devera Ezmiye a bajarê Kerec û Hemedanê cihgir bûn. Piştî şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an û hiloşandina rejîma Pehlewî, Partiya Demokrat a Kurdistanê, di bin navê Qiyadeya Moweqet(Rêberiya Demkî), car din dest bi xebata xwe kir. Mela Mistefa berî wê demê di Şibata sala 1979'an de, li Amerîkayê çûbû ber dilovaniya Xwedê. Piştî mirina ji nişkê ve a Idrîs Barzanî, Mesûd Barzanî kurê Mela Mistefa Barzanî, dest avête pênasekirinek nû ji partiyê û bi berxwedana nêzîk 30 salan li hember rejîma Îraqê, di encam de Partiya Demokrat kire yek ji leyîstvanên sereke di pêvajoya hiloşandina rejîma Îraqê û guhartina yasaya bingehîn, bi armanca avakirina sîstemeke federal li Îraqê û ragihandina herêma otonom a Kurdistanê. Partiya han yek ji du partiyên sereke li Başûrê Kurdistan û Îraqê ye ku rêberiya Herêma Federal a Kurdistanê li stûyê serokê vê partiyê, Mesûd Barzanî ye. Bizava Barzaniyan, yek ji dirêjtirîn şoreşên çekdarî - siyasî di Rojhilata Navîn û cîhanê de bûye ku niha gihîştiye beşek ji armancên xwe li Başûrê Kurdistan û Bakurê Îraqê.

# Dara Natiq: Rewşa Siyasî A Gelên Îranê Û Nexasma Gelê Kurd Û Nifşa Ciwan Yê Bûye Goriyên Berjewendiyên Aborî Yên Navbera Wan Dewletan.

**Hevpeyvîn: Selîm Zencîrî**

**Piştî vegeriyan ji gera dîplomatîk a xwe ji bo çend welatên Ewropayê, me bi hewce zanî li ser encamên sefera wî hevpeyvînekê bi Sekreterê Giştî yê YCDK Îranê, birêz Dara Natiq, re pêk bînin ku eva deqa hevpeyvîna me ye ku dikeve ber çavê we.**

**Kekê Dara Natiq, vê dawiyê we sefera çend welatên Ewropayê kir, armancên wê sefera we çi bûn?**

Wek hûn dizanin, Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê kariye di wan çend salên derbasbûyî de, bi bihêzkirin û organîzekirina rêxistinên xwe li derveyî welêt û herwiha bi hewl û xebata dîplomasî û bêrawestan ya endam û tagirên Yekîtiya Ciwanan, pêwendiyekî bihêz tevî rêxistin û aliyên cur bi cur ên Rojava çê bikin. Her li ser vê bingehê, di wî heyamê derbasbûyî de, ez wekî berpirsê Yekîtiya Ciwana bi fermî ji aliyê rêxistina SSU li welatê Swêd û saziya DSU li welatê Danîmarkê û herwiha rêxistina AUF li welatê Norwejê hatme gazîkirin, bo vê çendê ku li nêzîk ve û di asteke giştî de em bi hev re derheq mijarên cur bi cur ên pêwendîdar bi guhartinên cîhanî, herêmî û doza Kurd bi giştî û bi taybetî doza ciwan Kurd biaxivin û nêrîn û dîtinên xwe di vê derheqê de bidne xuyakirin. Herwiha birêvebirina hin civîn û simînarên teşkîlatî ji bo endam û komîteyên Yekîtiya Ciwanan di hin welatên Ewropayî de pareke din ji amancên serek yên wê sefera min ji bo derveyî welêt bûn.

**Aliyên têkildar yên wan welatên Ewropî çawa pêşwaziya we kirin?**

Bê guman aliyên pêwendîdar û cur bi cur ku em bi wan re civiyan, gellek bi germî pêşwazî ji me kirin. Ji ber ku bo cara yekemîn bû ku berpirsê YCDKÎ ji Kurdistanê bi awayekî fermî serdana derveyî welêt dikir, ji bo wan balkêş bû û lewma gellek sazî û aliyên cur bi cur ên Ewropî û nexasma medyayên ser bi wan welatane bi awayekî fermî em gazî dikirin û dixwastin ku li nêzîk ve û bi zimanê me haydarî rewş û zirûfa niha a herêmî û doza Kurd bi giştî û bi taybet arîşe û pirsgirêkên ciwanên Kurd û herwiha rewşa aloz û kirîza xurt ya Îranê bibin.



**Di wê seferê de, we çiqas karî rewş û pirsgirêkên ciwanên Îranê û nemaze yên Kurd bi aliyê Ewropî re bidin nasandin?**

Bi giştî di wan hevdîtinane de, me hewl da ku ew zext û givaş û tepeserkirina netewên bindest yên Îranê û binpêkirina mafê mirovan, girtin, kuştin, cezakirin û îdama keç û xortên azadîxwaz û mafxwaz yên Îranê, kevirbarankirin û tepeserkirina jinan, sansor û daxistina rojname û girtina rojnamevanan, qeyrana bêkarî, fesadî, belavkirina madeyên bêhişker û dehan diyardeyên biyom ên civakî ku berhema siyasetên dijî gelî yên Komara Îslamî a Îranê ne û îro rojê gelên Îranê bi giştî û nemaze nifşa ciwan bi wan re berbirû bûye, bidne şirovekirin. Herwisan me zêde tekez li ser vê hindê dikir ku rejîma Komara Îslamî bi hegera meşandina siyasetên îdeolojîk û dijî mirovî ên xwe di asta herêmî û cîhanî de û piştevanîkirin ji girûpên terorîst û binajoxwaz, xebat ji bo bidestxistina çekên etomî, desttêwerdan di nav kar û barê welatên cîran de, guhnedan bi daxwaz û xwastekên civaka navneteweyî mezintirîn gef û asteng in bo ser cihgirkirina aştî û tenahiya cîhanê bi giştî. Her lewma gelên Îranê bi giştî û bi taybetî nifşa ciwan herdem bûne qurbaniyên siyasetên şerxwazane û çewt yên vê rejîmê. Lewma divêt cîhan bi giştî û bi taybetî welatên Ewropayî bi awayekî micid li hember wan pirsgirêkane bisekine û bi piştîvanîkirin ji xebata azadîxwazane û mafxwazane a gelên Îranê, sîstemek azad, û demokratîk û federal di Îranê de ava bikin ku tê de rêz ji mafê tev aliyekê û bi taybetî ciwanan bihê girtin û dawî bi temenê rejîma tepeserkar û dîktator were anîn.

**Ew weke aliyên Ewropî heya çiqas agahdarê rewşa han a ciwanên Îranê û Kurdistanê bûn?**

Bi baweriya min, ew gellek bi hûrî haydarî rewşa binpêkirina mafên mirovan di Îranê de û zext û givaşên ser netewên bindest ên Îranê û bi taybetî siyaseta sîstematîk û asîmîlekirina netewa Kurd û mîlîtarîzekirina Kurdistanê û herwisan rewşa xirab a ciwanên Kurd bûn. Lê mixabin ew dewletane serbarê hestkirin bi wan hemû arîşane, pirr caran li ber berjewendiyên aborî yên xwe tevî dewleta Îranê siyaseta bêdengî û be helwestiyê li hember wan hemû arîşane de birêve dibin.

Bo nimûne, perwendeya terorkirina rêber û lehengê aştîxwaz û navdar yê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Dr. Qasimlo li ser maseyê gotûbêjê û bi destê dîplomat terorîstên Komara Îslamî li Viyen, paytexta Otrîşê bû qurbaniyê berjewendiyê aborî yên navbera herdu dewletan û tu dadgehî û lêpirsînek di vê derheqê de ji aliyê dewleta Otrîşê ve nehate kirin. Bi kurtî, dixwazim bêjim ku cîhan bi giştî gellek baş haydarî rewş û zirûfa tevlihev a civata Îranê ye, lê mixabin gelên Îranê û nexasma gelê Kurd û nifşa ciwan yê

bûye goriyên berjewendiyên aborî yên navbera wan dewletan.

**Pêwendiyên we bi giştî bi wan re di çi astekê de ne?**

Dikarim bêjim ku bi giştî YCDK Îranê pêwendiyekî gellek baş û bihêz digel rêxistinên taybet bi ciwanan di welatên cur bi cur ên Ewropayî de heye. Em yekemîn rêxistina Kurd a taybet bi ciwanan bûn ku me karî bi xebat û tekoşîna mafxwazane û dîplomasiya xwe bibin endamê fermî yê Rêxistina Cîhanî a Enternasyonala Sosyalîst û herwisan me karî rêyê vekin bona ku rêxistinên din yên Kurd di parçeyên din yê Kurdistanê de bibin endamê vê organîzasyonê. Hewisan em niha endamê rêxistina cîhanî a LNU ne. Bi xweşî ve heya niha me kariye em gellek pirojeyên hevbeş him li Kurdistanê û hem li Ewropa di warê xizmetkirin bi nifşa ciwan de birêve bibin. Pirr caran



me bi hev re helwest û daxuyaniyên hevbeş û pêwendîdar bi xebat û tekoşîna herdu aliyan weşandine. Bi giştî pêwendiyên me tevî wan rêxistinan di asteke herî bilind de û li ser bingeha parastina berjewendiyên du aliyane ye.

**Ew têkiliyên we çi tesîrek li ser nasandina û pêşdebirin doza Kurd û bi taybetî ciwanên Kurd hebûye?**

YJDKÎ kariye di wan çend salên derbasbûyî de, bi endambûn di hin rêxistinên navneteweyî de û bi pêwendîgirtin tevî aliyên cur bi cur ên cîhanî û mifahwergirtin ji wan tirîbûnên cîhanî, hawara mafxwazane a netewa Kurd û dengê azadîxwaz û zilmlêkirî yê keç û xortên Kurd bigehîne guhê cîhanê û bala wan bo aliyê doza berheq ya wan rabikşînin. Her wisan me hewil daye ku bi bihêzkirina pêwendiyên xwe, herçi qas zêdetir ji bo navneteweyîkirina doza Kurd û bi taybetî ciwanan têbikoşin.

**Kekê Dara Natiq, spas ji bo ku te dema xwe bi me re veqetand. Gotina te ya dawiyê?**

Ez jî gellek sipas û mandînebûniyê ji we û tev xebatkarên weşana Agirî dikim bo vê derfetê û ji Agirî re jî hêviya temendirêjî û berdewamî di xebatê de dixwazim.

Di dawiyê de daxwazê ji tev keç û xortên me yên azadîxwaz û demokratperwer dikim ku bi jêhelbirina astê hişyariya siyasî û zanistî ya xwe û herwisan bi bihêzkirina seha şoreşvanî û neteweyî di nava civata xelkê Kurdistanê de, di pêxema armancên xwe yên siyasî û neteweyî de, herwek derbasbûyî tekoşîna xwe ya demokrasîxwazî û azadîxwazane bimeşînin.

## Şiroveya Peyvên Siyasî



**Berhevkar: Omîd Esxeran**
**omid_anbi@yahoo.com**

# RADÎKALÎZM

Radîkalîzm ji têgiha latînî a "Radix"ê ku tê wateya bingehê, hatiye wergirtin û bîr û hizra wan kesan e ku pûte û girîngiyê didin bingeha mijaran û dijberiyê tevî şekl û metodên berê dikin û her wiha daxwaza guhartinên bingehîn û bilez di civakê de dikin. Têgiha han berê li Birîtaniyayê û di nava texa rewşenbîrên patiya Lîberal de ku kesên pêşkevtinxwaz û alîgirên rasteqîn ên guhartinan bûn, dihat bikaranîn ku bi vî awayî têgiha Radîkalê di nava wan de belav bû. Di rastî de delîve û derfeta serhildana radîkalîzmê li Birîtaniyayê vedigere bo vê çendê ku di sedsala 17'an de bas û nîqaşeke zaf li ser pirsên cur bu cur ên civakî, aborî û siyasî di nava xelkê wî welatî de belav bibû û ew kesên ku lîberal û alîgirên azadiyê bûn, hin pîlan ji bo hiloşandina sîstema desthilatdariyê di wê demê de darêtin û daxwaza guhartinan di bingehên hikûmeta yasayê û kar û barên olî de, dikirin.

Ji aliyekî din ve jî, ji ber ku teoriya fîlesofên wê demê yên weke **Bêntham** û **Can Stwart Mîl** li ser bingeha azadiya aborî û takekesî hatibû danîn, hizr û ramana wan rolek berbiçav di rêxistina bingehên radîkalîzmê de hebû û eva jî bû sedema vê çendê ku hizr û baweriya takekesan jî guhartin bi ser de were û bi vî awayî hêdî hêdî hejmarek zaf ji xelkê rû li radîkalîzmê kirin.

Radîkalên Birîtaniyayê her ji destpêkê ve beşek bûn ji sermayedarên serbest û azad ku bi tundî dijberiya sîstema heyî a wê demê û bi taybet dîktatorî û şêwazên kevin ên Dêrê dikirin û daxwaza guhartinên bilez di destûr û hilbijartinan de, dikirin.

Teoriya radîkalîzma Birîtaniyayê, hêdî hêdî bandor li ser welatên din û yek ji wan Swîsê danî û eva bû sedem ku radîkalîstên wî welatî guhartinan di destûra welatê xwe de pêk bînin. Li Fransayê jî bi taybet di destpêka komara sêyem de, hejmarek zaf ji xelkê wî welatî bi tundî alîgirî ji radîkalîzmê dikirin û heyamekê jî desthilat di wî welatî de bi destve girtin.

Kesên Marksîst radîkalîzmê weke şêwaz û awaya liv û lebata qata borjuwa û sermayedar dizanin û li ser vê baweriyê ne ku rêzbaza han a siyasî jî ji bo dabîn û ewlekirina berjewendiya wan hatiye pêkanîn. Li gor hizra wan, eva ji ber vê çendê ye ku kesên radîkalîst, her ji destpêkê ve alîgiriya ji daxwazên xwe di çarçoveya bingehên sermayedarî û berjewendiyên takekesî de, dixin rojevê.

Îro rojê têgiha radîkalîzmê ji bo guhartinên giştî û bingehîn jî tê bikaranîn û kesên radîkal daxwaza guhartinên bingehîn û diyarîkirî ji bo baştirkirina rewş û zirûfa aborî û civakî û pêgeha siyasî a şêniyan dikin. Kesên radîkal ji bo dabîn û ewlekirina vêc û berjewendiya texa xizan û hejar, dijberiyê tevî heyîndar û xwedî cîgehên bilind ên civakî û îmtiyazên wan dikin.

Îro rojê li Amerîkayê peyva radîkalê zêdetir ji bo girûpên Sosyalîst û Komonîst tê bikaranîn, lê li Ewropayê zêdetir ji bo wan girûpan tê bikaranîn ku daxwaza guhartin û çaksaziyan dikin ku zêdetir ji partiyên miyanerew û lîberal ên navîn yên weke Partiya Sosyalîst a Fransayê û Partiya Lîberal a Birîtaniyayê, pêk hatine.

Her wiha di warê siyasî de li pirraniya herêmên cîhanê de, têgiha radîkalîzmê ji bo girûpên tundrew "Extermists" tê bikaranîn.

Radîkalîzma demokratîk yan jî demokrasiya tundrewane, navê yek ji bizavên hizrî ên siyasî li Birîtaniyayê ye ku li sedsala 17'an di çarçoveya girûpekê de xwe rê xist û piştre bi partiya **Lîvîlran** "Levellers" binav bû.

**Çavkanî:**
**(Ferhengî Ramiyarî Nîga) Azad Weledbegî**
**(Danêşnamêyê Siyasî) "Politicial Dictionary"**
**Daryûş Aşorî**

# Kuştinên Namûsî Li Îranê

**Hemîd Muxtarî**

Salane hezaran jin li seranserê cîhanê di bin navê parastina namûsê de ji aliyê bav, hevjîn, bira, kur û xizm û kes û karên xwe yên nêzîk tên kuştin.

Li gor rapora Saziya Nifûsa Cîhanî a ser bi Rêxistina Netewên Yekbûyî, her salê di 14 welatên cîhanê de, 5 hezar jin dibin goriyê parastina namûsê û tên kuştin.

Îran jî yek ji wan welatan tê hesibandin ku tê de cinayetên han bi awayekî berfireh çê dibin.

Her li gor rapora Saziya Nifûsa Cîhanî, %20 ji kuştinên ku di welatê Îranê de diqewimin, namûsî û cinsî ne. Lê piraniya kuştinên han di civakên kilasîkî de pêk tên.

Bo mînak her çar Parêzgehên Kurdistana Îranê, anku Azerbaycana Rojava, Kurdistan, Îlam û Kirmaşan tevî Parêzgeha Xozistanê di vê derheqê de, xwedî pileya yekem in û salane çendîn keç û jin li parêzgehên han di bin navê parastina namûsê de tên kuştin. Her di vê derbarê de em dikarin îşarê bi serjêkirina keçeka kurd a bi navê Firîşte Necatî bi destê bavê wê bikin. Firîşte Necatî, Keça 18 salî, xelkê bajarê Merîwanê, roja 14.08.2008'an bi awayekî hovane bi destê bavê xwe tê serjêkirin. Firîşteya ciwan ku di temenê 14 saliyê de neçar bi zewaca bi zorî dibe û piştre ji hevjînê xwe vediqete û tevî malbata xwe dijî. Ji ber dijhevî û nakokiyan li ser wê pirsê, ji aliyê bavê xwe ve bi awayekî hov û nemirovane tê serjêkirin. Yan xwekuştina Azer Ebdî, xelkê bajarê Bane, di çend rojên borî de. Azer Ebdî hez ji xortekî dikir, lê bavê Azerê razî bi zewicîna wê tevî wî xortî nebû, lewra Azer Ebdî di mala xwe de bi tifinga bavê xwe dawî bi jiyana xwe anî.

Di bin desthilatdariya Komara Îslamî de, dema ji aliyê mêrekî ve tecawuz û êrîş ser jinekê tê kirin û li hember de jin berevaniyê ji xwe dikin û mêr tê kuştin, qanûn jina han bi îdamê mehkûm dike û tu piştgiriyek ji wê jinê jî nahê kirin. Nimûneya wan cure jinane di girtîgehên rejîma Komara Îslamî de gellek in.

Ez dixwazim di vê mijarê de sedemên bingehîn ên cinayetên han bînim berbas.

Çima divêt civaka me bi vî awayî tevbigere?

Çima dibe hinek mirov bi destê nêzîktirîn kes û karên xwe bên kuştin? Sedemên sereke ên kiryarên han vedigerin ser çi?

Bersîva vê pirsiyarê rasterast me ji bo aliyê ol û deb û edetan paşverû radikêşîne. Deb û edet, girîngtirîn rolê di çêbûna cinayetên han de dilîzin.

Bo mînak, di civakên mêrserdest de ku Kurdistan Îranê jî (her çar parêzgehên Kurdakincî) yek ji wan civakan tê hesibandin, bawerî eva ye ku mêr desthilatdar û hakim e. Jin divêt di bin desthilata mêr de be. Ji dîtina mêrên civakên han, jin namûsa malbatê ye. Xelkê civakên han (jin û mêr) weke alavekî cinsî mêzeyî jinê dikin û hemû kesayetiya jinê di pakiya wê de dibînin û ger jinek pakiya xwe ranegire, tê kuştin.



Ji aliyekî din ve rejîma Komara Îslamî a Îranê jî bi pesendkirina yasayên li dijî jinan di xurtbûna cinayetên han de hêsankarî kiriye. Her di vê derheqê de em dikarin îşare bi madeya 630 a Yasaya Cezayên Îslamî bikin. Di vê madeyê de hatiye: Ger mêrek jina xwe tevî kesekî din di halê encamdana pêwendiyên seksî(cotbûnê) de bibîne, mêrê jinê mafê kuştina hevjîna xwe heye û ji aliyê dadgeh ve nahê cezakirin. Yan madeya 220 a Yasayên Cezayên Îslamî, ku dibêje: Ger bav yan bapîrek zarokên xwe bikujie, nahê îdamkirin û bi dana xwînbihayê kesê/a kuştî, dikare serbest were azadkirin. Herwiha di madeyeke din de hatiye: Xwînbihaya jinê nîvya xwînbihaya mêrî ye. Dema ku rejîmek weke Komara Îslamî a Îranê yasayên civakê, li ser bingeha ol, sîstemeke eşîrî û deb û edetên paremayî pesend dike, bê şik diyardeyên han dê di civakê de xurt bibin.

Gotinek di zanista yasayê de heye ku dibêje: Rola yasayê çêkirina kulturê ye.

Bo mînak, dema ku yasa dibêje niha pey de bikaranîna madeyên sirker qedexe ye, qanûn dixwaze rabigihîne ku ji dîtina min ve, bikaranîna madeyên sirker karekî ne baş e. Lewra ez ne tenê bikaranîna madeyên bêhişker qedexe dikim, belku ezê jê re cezayê jî diyarî bikim. Wê demê mirov dibîne ku di civakê de kulturek ava dibe ku bikaranîna madeyên sirker qedexe dike. Lê dema ku yasa dibêje jiyana mêran xwedî rêz û hurmet e. Ger kesek mêrekî bikuje, divêt bê cezakirin, lê bihaya jiyana jinan nîviya bihaya jiyana mêram e. Yasaya han dibe sebeb ku tund û tûjî li dijî jinan hem di nava malê de û hem di nava civakê de zêdetir bibe. Ev yeka jî dibe sebebê xurtbûna cinayetên weke zarokkuştin û jinkuştinê.

Bona pêşîgirtin ji cinayetên weke kuştina jinan û keçan di bin navê parastina namûsê de, divêt di yasayê de guhertin pêk werin. Yanî divêt jin piştevaek hebe ku mixabin tune ye. Divêt di ragihandinên dewletî û ne dewletî de basê cinayetên han bê kirin û bi perwerdekirina xelkê pêşî ji kiryarên han ên hovan bê girtin. Hewce ye ku saziyên ne dewletî jî bi encamdana karên weke agahdarkirina jinan ji mafê xwe û çawaniya bi destxistina vî mafî û herwiha perwerdekirina xelkê û agahkirina wan ji encamên nerênî ên cinayetên han di civakê de, pêşiya qewimîna diyardeyên han bigirin. Gellek herêmên Îranê weke Kurdistana Rojhilat, Xozistan û hwd... di feqr û xizaniyê de ne. Feqra aborî jî xizanî û jarbûna kulturî bi xwe re tîne û eva jî yek ji sedemên pêkhatina cinayetên han e. Bi pêşesazîkirina herêmên han mirov dikare heya astekê pêşî ji wan cînayetan bigire. Lê gelo bi rastî rejîma Îranê dikare şert û mercên han cî bi cî bike? Rejîmek ku hemû mana xwe di tepeserkirina jinan de dibîne, rejîmek ku bi navê ol dest daye tepesaerkirina jinan, rejîmek ku heta terzê lixwekirinakincên jinan jî diyarî dike, dê çawa bikare bibe piştevanê jinan. Rejîmek ku mafê netewî red dike, dê çawa dest bide pîşesazîkirina herêmên weke Kurdistan, Xozistan û hwd....

Tenê rêçareya pêşîgirtin ji cinayetên han, avabûna sîstemeke demokratîk di Îranê de ye. Sîstemek ku yasaya bingehîn a wê li ser rîşal û biaxa wekhevî, dad, cudahiya ol ji dewletê, dabînbûna mafên hemû çîn û qatên civakê bê tu ferq û cudahiyek ava be.

# 13 Kesên Din Li Îranê Hatin Îdamkirin



Li gor agahiyên Ajansa Nûçeyan ya Frasnayê, 5 hevwelatiyên din ku di nava wan de ciwanekî 20 salî bi navê **Riza Hicazî** jî dihat dîtin, hatin îdamkirin.

Emrê Riza Hicazî, li dema encamdana tawanê, tenê 15 sal bûye. Saziya Efûya Navneteweyî bi belavkirina daxuyaniyekê îdamkirina navhatî rûreş û pirotesto kir.

Mihemed Mistefayî, parêzerê Riza Hicazî, eşkere kir ku roja sêşem, 19.08.2008'an, girtiyekî bêtawan bi navê Esxer Îsmaîlî jî hate dardekirin. Navhatî bi buxtana tecawoza bi zorî bo ser jinekê bi cezayê îdamê hatibû mehkûmkirin, lê berî cîbicîbûna qirara îdama Esxer, roh bibû ku navhatî bêtawan e.

Her wiha dadgeha Komara Îslamî a Îranê li parêzgeha Xorasana Başûr ragihand, seba biryarên Dadgeha Şoreşa Îslamî li Bîrcendê, derheq îdamkirina 6 kesan û pejirandina biryarên han ji aliyê dadgeha bilind a welat, 6 kesên mehkûmbûyî bi cezayê îdamê hatin daliqandin.

Hevdem hate ragihandin ku du kesên din bi navên Xulamriza û Emîn di zîndana Qizil Hesar ya bajarê Kerecê de hatine îdamkirin.

Her wiha Ajansa Nûçeyan a Fransayê ragihand ku du kesên din bi navên Emîr û Kerîm ji aliyê dadgeha rejîma Îranê bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin. Emîr di dema encamdana tawanê de tenê 16 sal hebûye û biryar e di dema herî nêzîk de were dardekirin. Kerîm jî di dema encamdana tawanê de 17 salî bûye û niha di girtîgeha Mehabadê de li benda îdamê ye.

Li gor çavkaniya han, nêzîk %40 zarokên di girtîgehên rejîmê de li benda cîbicîbûna biryara îdama xwe ne û di sala 2008'an de aliyê kêm 172 kes di bin desthilata rejîma Komara Îslamî a Îranê hatine daliqandin.

# %90 Ji Zarokên Ku Kar Dikin, Nexwendevan În



Pitir ji %90 ji zarokên ku li Îranê kar dikin, seba xizanî û desttengiyê û hewildan bona dabînkirina debara jiyana malbata xwe nekarîne dersê bixwînin.

Fatime Qasimzade, endama damezrîner a navenda alîkariya zarokên ku kar dikin û li ser şeqaman in, serbarê ragihandina vê nûçeyê tevî "ILNA"yê got: "Zarokên ku li Îranê kar dikin, seba belengazî û xizaniyê neçar in bona dabînkirina debara jiyana xwe kar bikin".

Eva jî bûye sebeb ku zarokên han ji perweredehiya zanistî û civakî bêpar bin û pitir ji %90 ji wan heta nikarin bixwînin û binivisînin.

Wê her wiha ragihand, seba hebûna tenê 9 navendên piştevanîkirin ji zarokên ku li Îranê kar dikin û ji aliyê dadgeha Îranê jî kêmtirîn hevkarî bi wan re tê kirin, bêtirî 400 hezar zarokên ku li Tehranê kar dikin, ji her cure perwerdehiyekê bêpar in.

# Teqîna Mayînê, Canê Du Zarokên Kurd Stand



Seba teqîna mayînê, li nêzîk nexweşxaneya bi nav Şehîdên bajarê Serpêla Zehawê, du zarokên Kurd hatin kuştin û 5 kesên din bi xurtî birîndar bûn.

Cîgirê Operasyonên Lezgîn ên Îranê, di vê derbarê de bi Ajansa Nûçeyan a "Fars"ê re ragihand: Bûyera han roja 16.08.2008'an, seba teqîna mayînekê di nava çemekê de li nêzîk nexweşxaneya bi nav Şehîdên bajarê Serpêla Zehawê qewimiye. Di encama vê teqînê de 2 zarokên Kurd ên temen 13 û 15 salî hatin kuştin û 5 kesên din bi xurtî birîndar bûn.

Teqîna mayînan, di salê de jiyana sedan Kurdê Rojhilatê Kurdistanê distîne.

Rojeva Civakê

# Zarokên Ser Şeqaman

**Agirî- Beşa Civakî**

Zêdebûna hejmara zarokên ser rê û şeqaman li Îranê yek ji wan xesarên civakî tê hesêb ku li encama hejarî û nebûna ewlehiyê, tûşî civakê hatiye. Di rastî de sedema sereke a kirîza han divegere.

Tê texmînkirin ku hejmara zarokên ser şeqaman li Îranê nêzîkê 1 milyon kesan be, lê desthilatdarên rejîmê bi awayekî bêşermane her dem hewl dane ku rastiyê serhejmarên heyî veşêrin û serhejmarên nerast û dûr ji rastiyê bixin ber destê xelkê, bo mînak:



Li gor nûçeya nûçegihanê Karê Îranê, "ILNA"yê, Birêveberê Giştî yê Saziya Bêhzîstî a parêzgeha Tehranê ragihand: Hejmara zarokên ser şeqaman li Tehranê di sala 2008'an de, li hember sala borî du qat bûye. Lê li gor gotina **Zahir Rostemî**, berpirsê Saziya Bêhzîstî a Îranê, heya niha tenê 800 zarokên ser şeqaman ên ku li Tehranê kar dikin, ji rêxistina han a dewletî re hatine naskirin û ev hejmara di sala 2007'an de, tenê 460 kes bûne. Navhatî sedema vê pirsê rohn nekir, lê got: %90 ji zarokên ser şeqaman ên li parêzgeha Tehranê, ji parêzgehên din ên Îranê û welatên cînar de hatine vî bajarî.

Ragihandina hejmara 800 zarokên ser şeqaman li Tehranê, ji aliyê Zahir Rostemî ve di demekê de ye ku li gor rapora malpera dewletî a "BRNA"yê, karbidestên fermî ên rejîmê, hejmara zarokên ser rêyan li Tehranê, 20 hezar kes û ldi giştî welat de 200 hezar kes ragihandine. Lê pêka serhejmariya ku ji aliyê Saziya "UNICEF"ê ve hatiye weşandin, hejmara zarokên Îranê ên ku li ser şeqaman kar dikin, ji 400 hezar heya yek milyon kesan e. Ser siyasetên şaş yên aborî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê ku roj bi roj dibe sebebê jordeçûna asta feqîrî û xizaniyê di civakê de. Ev yeka jî dibe sebebê pêkhatina xesarên wek: Telaq, tûşbûna ciwanan bi madeyên sirker, HIV, zarokên ser şeqaman, helatina mêjiyan, xwefiroşiya jinan û hwd...

Ger kesên weke Zahir Rostemî, ji hejmara zarokên ser şeqaman qasî 800 kesan texmîn neke, wê demê nikare berpirsiyariya xwe di vê saziyê de biparêze. Lewra bona man di desthilatê de hewce ye bi dana serhejmariya şaş û nerast, xelkê bilêbînin.

# PERWERDEHIYEKE ÇAWA ?

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Mirovên ku li gorî azîneyên hêvotina zanistî têne perwerdekirin, tu car hewceyî lasakerî û serşûriyên nabin. Di perwerdehiya zanistî de lasakerî nîn e. Û hewce nîn e ku tu kes xwe bişibîne kesekî/e din. Lewre her mirov dikare bi rengê xwe, bi dengê xwe, bi behre û berhemdariya xwe, bi xislet û taybetiyên xwe derkeve qada jiyanê û hest û ramana xwe derbibîre. Ango kesên ku li gorî pergala hêvotineke zanistî pêne perwerdekirin, tenê dişibine xwe. A rast, kesayetiya takekes û xisletên mirov ên resen û xweser jî her gav bi vî awayî pêk tên û pêşve diçin.

Pergala perwerdehiya zanistî, naşibe pergala perwerdehiya dûgelên paşverû û civakên paşmayî. Îro li gellek deverên dinê perwerdehiya hin welatan gelekî dûrî rêbaz û azîneyên zansitê ye. Perwerdehiya dûgelên kevneperest, ji bo ku tevê hemwelatiyên xwe wekî yektip bigihîne û wan bişibîne hev û din, hemûyan di hundirê şablonekê de didewisîne. Pêşî wan bêvîn û bêgiyan dihêle. Û wan di nava diranê pergala çewsîner de diesirîne. Belê perwerdehiya zanistî berevajî wê netewe, nîjad, ol, ziman, çand, rewşa aborî û her wekî din dab û nêrîtên mirovan li ber çavan digire. Mirovan li gorî van peytandinan perwerde dike û digihîne.

Di şêwaza perwerdehiya zanistî de çewsandin, qedexekirin û pest û kotek qet nîn e. Heta di perwerdehiya zanistî de perwerdekarên çapker û qedexeker tu car nayên wezîfedarkirin. Ji bo kesên ku bikaribin perwerdehiyeke zanistî pêk bînin, carekê divê ku ew bi xwe di pergala perwerdehiyeke zanistî re derbas bûbin. Ji bo wê jî hewcetî bi bîrdozeke têkûz, berpêbûyîneke mirovî û feraseteke gerdûnî heye.

Her çend ku perwerdehî gellek têgîn û kirûyên berfireh di xwe de dihewîne jî, dîsa divê ku em hinekî li ser pirsgirêkên perwerdehiyê rawestin û çend arîşeyên wê bînin zimên. Berî wê jî divê em perwerdehiya paşverû û perwerdehiya zanistî rûberî hev û din bikin. Her çend ku navê perwerdehiyê bi ser ketibe jî, a rast li welatên paşverû yên ku ji aliyê pergalên nijadperest ve têne birêvenbirin, hevrik û firtika perwerdehiya zanistî jî nîn e. Îcar mirov nema dizane ji ku dest pê bike û kîjan çewtî û xeletiyên perwerdehiya van welatan hilde dest. Ji ber ku li van welatan pergal; nemaze jî pergala perwerdehiyê ji serî heta binî bi çewtî, xeletî û sepanên neyînî hatiye rapêçandin, mirov nikare aliyê baş û xerab ji hev û din veqetîne. Heta mirov ji bo peytandina pirsgirêkên perwerdehiyê pirr ditengive jî. Derbarê vê yekê de biwêjeke tirkî heye: "Ji hêştirê (deveyê) pirsîne 'gelo çima stûyê te wisa xwêl e ?' Hêştîrê bersiv daye, gotiye 'Ma gelo ku derê min rast e ku stûyê min ne xwêl be ?'" Rewşa pergala perwerdehiya dûgelên paşmayî û çewsîner jî dişibe rewşa deveyê. Tu li kîjan hêlê dinihêrî çewtî, xeletî, neqencî û neyînî jê dibare. Li van welatan, texrîbat û rûxanên ku di jiyana takekes û civakê de pêk hatine ku nayê gotin. Wisa bûye ku ev texrîbat zû bi zû nayên cebirandin jî. Belê dîsa jî divê ku ev pirsgirêk û arîşeyên perwerdehiyê bi lezgînî û veguherandineke tevayî bêne safîkirin. Hekena, ne pêkan e ku tu pirsgirêkên perwerdehiyê an jî civakê çareser bibin û gel û civakên dinê bi aramî û bextewariyê nasdar bibe.

Ligel her tiştî dîsa jî divê em hin pirsgirêkên perwerdehiya welatê xwe yên berbiçav hildin dest û li ji bo çareseriya wan tê bikoşin. Li welatê me pirsgirêkên perwerdehiyê çi ne ? Carekê li ser vê erdnîgariyê (bi çavê dûgel û rêveberiya Dinê) tu kes wekî mirov nayê hesibandin. Li şûna berjewendiyên takekes û civakê, berjewendiyên çîna serdest û çend karsazên maldar têne raçavkirin. Her tişt ji bo wan e. Her kes di suxrevaniya wan de ye. Bi çavê hemwelatiyan li tu kesî nayê nêrtin. Berevajî wê, mirov di her warî de wekî benî (kole) û qerwaşeyan (cêriyan) têne dîtin û xebitandin. Îro hemû sazî û sazgehên perwerdehî û hîndekariyê, ne bi armanca ku mirov zana û şareza bibin; bi mebesta ku bêtir bibin qulixdar û suxrevanê dewletê û pergala ku ji bo berjewendiyên çend kesên bijarte hatiye damezrandin.

Wekî ku me li jorê jî anî zimên, sazgeh, sazî û hemû amrazên perwerdehiyê ji bo berjewendiyên çend kesan dixebitin. Pergala perwerdehiya dinê ya îroyîn, ji heft saliyan bigir heta heftê saliyan, dil û mêjiyê mirovan dîl digire û wan bi kesayetiyeke sosret û bêrûmet radipêçe.

*Kaniya Helbestan*

# Hûr Û Kûr Û Kûr



**Bavê Welat**
**bavewelat@yahoo.de**

Carnan difikirim
hûr û kûr û dûr,
min da pêş xwe
baxê gula rext û şûr.
Min xwest bidim dest wan
ew baxê gulan,
wan da pêş min
darê zorê bend û sûr.
Min got bira,
ew nîne çareserî
te girtine
li pêş min hemû derî.
Êdî nema
dem û dewrana berê,
nikay bijî
bi aqilê ser serî.
Êdî bese
berde vê lîska gura,
em destê xwe
bidin hev wekê bira.
Rakin em
tarîtiya li ser jiyanê,
em vêxin li herderê
find û çira.
Naxwazin em
biratiya fenbazî,
çima tu hîç wekheviyê
naxwazî?
Bi salane
bo te min kir şer û ceng
dîsa jî
bi lome û belengazî.
Were em bikewîni
vê birînê,
em bibin der manê
êş î qêrînê.
Daxwaz dikim
şa bibe dilê gelan
çi diramî
tu li ser vê nêrînê?
Tu herdemê
bûy rûreşê dîrokê
êdî nameş
jiyan bi vê çîrokê.
Were carek
bibe bahara rengîn,
mebar li ser serê me
wek teyrokê.

# Şivan Perwer, Sembola Muzîk Û Hunera Kurdî

**Mecîd Cinîkanlo**

Şivan Yûnis Xelîl, di sala 1955'an de, li gundekî navbera Amed û Urfayê bi navê Sûrbê, ji dayîk bûye. Qonaxa xwendina dibistanê di salên 1962 heya 1967'an her li gundê Sûrbê xwendiye û qonaxa navendî û paşnavendî jî di salên 1967 – 1972'an li bajarê Urfayê xwendiye û piştre çûye Enqerê û di salên 1972 heya 1976'an çûye zanîngehê û piştre jî çûye Ewropa. Hevjîna Şivan hunermenda dengxweş **Gulistan Perwer** e û kurek wan bi navê Serxwebûn heye.

Bêtirî 30 salan e ku sirûd û stranên agirîn û bicoş yên hunermendê navdar yê Kurd, Şivan Perwer hêvî û nîşanderê serhat û rewşa Kurdan li seranserê Kurdistanê ye û gelê Kurd li Mehabadê heya Hewlêr û li Qamişloyê heya Amedê, wî wek hunermendek neteweyî qebûl dikin û gellek Kurd li seranserê Kurdistanê, hestên xwe yên neteweyî deyndarê Şivan Perwer dizanin. Awaz û stranên welatperwerî heyamekê guhdarîkirina wan li her çar parçeyên Kurdistanê cezayê wê îdam bû û gellek ciwanên Kurd ji ber guhdarîkirina stranên Şivan, bi dest dagirkerên Kurdistanê hatin şehîdkirin. Şivan Perwer hunermendeke ku tenê ji bo gelê xwe û mirovahiyê û axa pîroz a Kurdistanê striye û eger çi ji welat dûr ketiye, lê bihust bihust axa Kurdistanê li reg û demarên wî de bûye û bi dûr ji hemû tagiriya partî, hêz û eşîreyî, tenê di xizmeta muzîk û hunera Kurdî de bûye û hewl daye ku ne bi çekê, belku bi saz û awazên xwe di xizmeta gelê xwe de be û di heman demê de jî hevkar û hevhizrê Pêşmergeyên parêzerê maf û azadiya gelê Kurd be. Strana "**Wa Hatin Pêşmergên Me**" nêzîk 20 salan e ku ew sirûde di dilê gelê Kurd de cih girtiye û rûçik û armanca Pêşmergeyên Kurdistanê bi başî bi wê awazê hatiye nasandin. Her wiha strana "Fermane dîsa li me fermane, serê me Kurda Ferman e" a Şivan Perwer hunermend û hevçeperê hemû xebatkarên rêya azadiya Kurdistanê ye. Ew tucar di çarçoveya tagiriya partiyan de nebûye, belku hertim û bê ferq û cudahî xemxwar û hevalê hemû hêzên Kurdistanê, bê tu meremekê bûye û di heman demê de kesayetiya xwe ya neteweyî parastiye. Şivan bi awaz û sitranên xwe yên şoreşvanî rihek taze daye bizava azadîxwaziya gelê xwe yê zulmlêkir. Her wiha wî jî hertim di piraniya awazên xwe de, gelê Kurd bi ders û xwendin û yekbûna neteweyî hay daye(Ji Kurda re dibêjim bila rabin bişeqin, bila rûnên bixwînin). Bêguman her kesek ku Kurdî bizane, eger çi tucar Kurdistan jî nedîtibe, lê bi awaz û stranên Şivan Perwer dibe evîndarê axa Kurdistanê û deşt û çiyayên wî welatî û di heman demê de bindestbûna Kurdan û dîroka xebata gelê Kurd bo wan ron dibe(Min xewna xwe de dîbû). Şivan Perwer bi hunermendiyek bêmînak û dengekî heqbêjane û şoreşgerane, guhdarên xwe bo sedan sal berî niha û dîrok û serpêhatiya gelê Kurd dibe "Kî ne em". Ew hunermendê mezin bi lêzanînek taybet ve wiha evîn û welatperweriyê bi hev re têkel dike ku hevdu dikemilînin. Şivan bi lêzanîna xwe a taybet, nîgarek weke hev ji jina Kurd bi guhdar nîşan dide û jina Kurd wek miroveka beraber û hevala xemxor ya mêrê Kurd nîşan dide(Xanima Min). Şivan Perwer ji vê hindê jî zêdetir çûye û bi sozekî taybet bi xwe ku her guhdarekê tîne coşê, jiyan û evînê tevlihev dike û bi tenbûra xwe, wateyeke ciwan dide azadiya mirov(Evîn nebe jiyan şîne, jiyan bê evîn qîmet nîne, dikim doza evînê, min birya te kiriye). Hunermend Şivan, di heman demê de ku li ser berxwedana gelê Kurd li hemberî dujminên gelê Kurd de re awaz gotiye, bo rojên şirîn ên azadiya Kurdistanê jî awaz gotine(Ala rengîn û pîroz te hel digirim diçim dimeş, li ser milê xortên ciwan, te hildigirim bi rojên geş). Şivan weke yekemîn hunermendê Kurd karî li welatê Almaniya û li bajarê Firankfortê yekemîn xelata awazên siyasî li seranserê axa dagirkirî werbigire. Hozanvan Şivan Perwer û awazên wî behrek ji wêje, huner û dîroka gelê Kurd e. Divê em bibêjin ku gellek helbestên stranên wî ên mamosta Cegerxwînê nemir û navdar in.

Şivan xwe weke xizmetkarê gelê xwe dide nasandin(Hozan im ez). Hunermend Şivan bi awazên xwe yên şoreşvane tirs û lerz xistiye ser



cendekê nehs yê dagirkerên Kurdistanê, bi awayekê ku Sedam Husên dîktatorê berê yê Îraqê di hevpeyvînekê de, li ser rola Şivan Perwer, dibêje: "Li wan hunermendên Ereb, ecêbmayî me, sê milyon hunermendên Ereb me hene, lê nekarîne Şivanekê haydar bikin, lê Şivan Perwerekî Kurd heye ku 30 milyon Kurd haydarî kêşe û pirsgirêka neteweya xwe kiriye".

Şivan Perwer bi sitrîna strana "Ey Şehîd, ey doktur" bi heq li her demekê zêdetir emegdariya xwe bi rê û şopa şehîdan nîşan da. Belê hunermend Şivan Perwer tevayî ciwanî û jiyana xwe goriyê gelê Kurd kiriye, niha erkê nifşa nû ye ku ji zehmetên wî hunermendê neteweyî re qedr û qîmetê danên û rûmeta wî jî bizanin. Bêguman wî jî dikarî weke hin kesên Kurd, ên weke Îbrahîm Tatlîses, nasnameya xwe înkar bike û di xizmeta hunera biyaniyan de be. Bêguman erkê her Kurdekê ye ku qedrê wî hunermendê mezin bizane û di rêya hunerê de hevkariya wî bikin. Çima em Kurd dibe tenê piştî mirina kesayetiyan, qedrê wan bizanin!

Şivan Perwer bi temenekî tejî destkevt, bi sedan awaz û sirûdan pêşkêşî gelê xwe kiriye. Ew hayder û piştevanê menewî yê Pêşmergeyên Kurdistanê, hevxemê gelê Kurd, sarêjkerê dilê xemgirtî yê dayîkên şehîdan û hayderê bi milyonan Kurdan bo berevanî ji axa Kurdistanê ye. Di dawiya wê nivîsarê de, ji bilî rêzgirtin ji kesayetî û hunera Şivanê gelê Kurd û daxwaza temenekî dirêj bo wî, ez dibêjim: "Silav û mandî nebî ey Şivan Perwer".

# Bêdengî Ango 'Kerî Bê Şivan Nabe'

**Arjen Arî 05.08.2008**

Belkî jî ji hizr û tirsa dûrketina ji axa xwe, axa ku li xeribîyê dibe destên hisretê û bi pêsîra meriv digire, û her roj û her kêlî kurmê vegera li wê, kurmê careke din dîtina wargeh û jîngehên li dûr mayî; şopên zaroktiyê, dilê ewil, xewnên xortaniyê… dihêle ku 'kes' li hemberî rûdanên bêserûber 'cilikê bikşîne serê xwe' û xwe bisipêre hîmê bêdengiyê.

Yê ku bêdeng nema, li gellek cihan di hemû zeman û dewranan de û niha jî bi zimanê wî re li dengê wî ya sal hatin birrîn, ya penaberî kete mistê, yan jî çoyê 'huşker' ji ser serê wî nehat xwarê!

Dihizirim û diponijim di ber xwe de weke yekî ji bêdengên bêdengmayî…

Hinekan gotibe, 'bêdengî şiklekî qîrînê ye'jî, dibêjim, 'gelo'? û bêhiska dipirsim ji xwe: Kê, li ku, kengî pêşî gotiye, 'bêdeng nemîne'?

Bêdengî di heman demê de pesendkirin/erêkirin e jî?

Wî çaxî, ez bêdeng bim, tu bêdeng bî, yê din bêdeng bimîne jî, û dinya bêhis û bêdeng xwe di kerahiya zîvirînê re bibe jî, çi tişt ne bêdeng e:

Zindî ne zindî in, cin, hawirdor; hewa, ax, av…xwedî xwe û dengekî ne!

Û ev deng bi hev re senfoniya xwezayê ne.

Di wexta aramiyê de sirûşt bi qasî hevdengiya lorîkek giyanî, pirrengiyeke xweser û xwezayî jî pêk tîne!

Lê payîzê… di destpêka gonxwarina ewran de, ewr û ba, ba û birûsk, bapeşk û babelîsk hikumranên deng in.

Û di kêliya herî bêhadan, ya mişt mizurî û têra xwe şûm de bê/bayî xwestibe bi her pêlê re darberûyê ji erqêbinî ve hilke jî, pêşiyên semaxkêş ew gotine:

Ba kare çi bibe ji tehtê?!

Bibe nebe, bi îhtimaleke mezin, ne ji dengê 'hawirdorê' bûya mirov jî dêlal, lalûke, bêdeng bûya.

Lê…Xweda'yê ku bi 'piffê' mirov afirandiye, zanibûye ku dengê evd jî heye, lewre bi rêya qasid û pirtûkên li pey qasidan mayî, peyama xwe daye:

'Serî neçîmîne li ber zilmê'!

Bi qasî ku emrê Xweda ye, evd dîsa bi ya xwe kiriye, û tê derxistiye ku ço hestî dişikîne!

Nêîro bi tenê; weke ku dîrokê dîtiye û çîrokê gotiye û hêjî têgotin: pêr e, duh e, îro ye; evdine serreş û rûhebeş rabûne, li ser textê desthilatê rûniştine, di 'destekî wan de şûr di yê din de pirtûka pîroz'- îro jî bîrdoza pîroz-…xwe di şûna 'yê li jor' li ser serê serreşan ferz kirine!

Ferz ne şûrê min e; lê min jî tiştek li xwe 'ferz' kiriye: nivîs!

Hûn dikarin bibêjin, tu jî ferza dinivîsî…

Ma ez jî ne evdek im?

Û ma ne, evditiya ji evd re evd ferz kiriye li ser serê evd!

Û hinek rabûne mîna min û niha kirine kewte- kewt:

Kerî bê şivan nabe!

**Dengê Rojava**



# Ji Mehabad Ta Bi Mehabad: Xewna Kurdiya Şêrîn!

**Besam Mistefa**

**"Merqeda" te li kû ye Qazî**
**Ta ku em bidinê berê xwe!!?**
**…………**
**Ta ku zirta me jî**
**Di nav tiliyên te de bixeniqe.**
-Ehmed Huseynî

Dem: 22.01.1946
Cih: Mehabad!

Li wir, tovê pêşîn li erda tiya aso û azadiyê, hate reşandin. Li wê meydana xweşik-Çarçira-di dilê Mehabada birîndar de, tîrêjên hêviyê yên destpêkê ronahî dan. Kurd in sade bi kesera dilkutiya pêşîn ya jiyana ku çend û çend hate kuştin lê nemir, berbi Çarçira ve kişiyan. Kurdên ji her şûn û warekî li wir civiyan da ku pêka yekemîn ya avahiya ku heta niha pêk nehatiye, deyinin. Çavên Pêşmergeyan bi tivingên wan yên dirêj li wir pêwaniya xewnê dikirin. Al û êş û çiya û asîmaneke mîna xewnê fireh çavdêriya cihê matmayî dikirin. Li pêşiya herzala sakar hindek mêr bi serpêç û kincên xwe yên Kurdî, di nav wan de Barzaniyê nemir ku xewn av dida û bi cil û berg dikir, bi mêr û tivingên ku qet ranwestiyane dikir, rawestiyabûn. Li ser herzalê, dadwerê sade û Pêşewayê mezin-Qazî Mihemmed–silav lêdida û ji aso re digot: Vaye em hatin, em ên ku qet neçûbûn!

Li Mehabad -bûka rojê- xewna şêrîn mîna çirûskekê ji çîrokên cinan û welatê efsaneyan û landika şaristaniyan –Mêzopotamiya- û sînorên Gilgamîş û Kawayê hesinkar, vepengizî! Wê demê -ku şerê cîhanî lidarbû- Qazî dît ku dem hatiye da ku tava nuxumandî dîsa geş bibe û reng li kok û rêzkirina xwe ya pêşîn vegerin. Li Çarçira xewnê, ji herzala xwe ya piçûk rastî hemû vegot… aso tev didît reş û sipî, rengfirîn û çirûskdar.. weke ku bizanibe roj çi pilanan li serê wî û milletê wî girê didin, lê zanebûna wî nebû asteng ku ew rê ji xewnê re veke berev sibebroja bendewar manendî keçeke nûber ku ji evîndarê xwe yê dûr re xewnekê bi firehiya asîmanan, bi tayên dilê xwe yê piçûk, vedihûne….û Qazî sade bû….feqîrên Mehabadê bi cil dikirin, wan li hev dianî û di tenge esran de, dema tavsorkê, di nav zeviyan de dimeşiya û êvaran vedigeriya mala xwe da ku tiştekî hindik ku jina wî amade kiriye, bixwe û raze û xewnên hêvîdar ku Mehabada xweşik û Mehabadiyên belengaz rojên xweş bibînin, didîtin. Xweşik bû….bi herdu çavên xwe yên nivandî û rûyê xwe yê tahir û rih û por û şîna di kûrahiyan de veşartî. Wî dizanibû çi dike û nêzîkî rastiya weke agir geş dibû, diviya bû ew wisa bike, destpêkê bi xwîna xwe ya paqij wêne bike, da ku zaro û nevî piştre rêveçûna xwînê bişopînin.

Yanzdeh mehan xewn berdewam bû, xwediyên wê jê re dilsoz bûn û di wê çaxa kêm de, tiştên ku dehan sal ji wan re divên, pêk anîn. Ew tenê, afirînerên destpêka zehmet didîtin, dawî nêzîk dibe û bihna genî ya petrolê difûre û mizgîniya ne xêrê, mizgîniya êş û azaran bi xwe re tîne! Yanzdeh mehan û ala kurdiya rengîn li asîmanê Mehabadê liba dibû û sirûda sermedî ji bajêr bilind dibû û xak bi kurdî diaxivî li wir. Li wir jî, qederê xwest ku serok Mesûd Barzanî kurê Barzaniyê nemir– ê ku komara nûzayî diparast û bi dilzosî û evîndariya xwe tevî berevaniya wê dikir, berî ku dijmin li ser kuştina wê lihev bikin û ew tevî pênc sed lehengî berê xwe bide Soviyetistanê, di rêveçûneke efsanewî digel emaneta ku ji Qazî wergirtibû: Ala ku Barzaniyê kur jê pêve di asîmanê Kurdistanê de, nepijirand-li wir jidayik bibe. Yanzdeh mehan, weke ku Mehabadî nêzîkbûna dawiyê ji destpêka xwe bibînin, bê rawestan kar dikirin, şanoyeke kurdî damezirandin, sirûdeke netewî afirandin û dibistanên kurdî ava kirin û pirtûk çap kirin û rojname û kovar belav kirin, ev hemû di demeke kurt de bi vîneke xurt û bilind wek bilindahiya çiyayên Kurdistanê.

Hingê, dîrokê ji neviyên Kawa re xefik vedidan. Weku hercar çîroka dilbijan dest pê kir û bayên konevaniyên navneteweyî yên ku ji berjewendiya xwe zêdetir nikarin tu tiştî bibînin, rabûn. Bazara li derê ha pêk hat û kurdên bihêzî qels dîsa hatine firotin…bûne qurban û tevlî axa dasitan û kilamet û efsaneyan ta demekê bûn, ji ber ku ew hercar nediyar dibin û paşê bihêztir û xweşiktir vedigerin!

Di heman meydanê de, piştî yanzdeh mehan, nûxuriyê nazik diviya bû were serjêkirin û bibe qurbanê biyanî û hemnijadên ku ji bihna xwînê pêve, tu bihnê hev dikin. Ew nizanin ku xwîn xwînê peyde dike, û rastî her û her tête holê…û rastî wirde wirde tê, mîna bayekî nepenî tê. Li Çarçirayê, tola xwe ji Kawa sitendin, lê nizanin ku Kawayê ku beriya hezar salan Ezdehak serjê kir, bi hezrana kur û keç û neviyên wî çê bûne, erê, veşartî ne lê jinişkave dixuyin, dema ku sitemkar wan li ber çavên xwe nabînin!

Di berbanga wê rojê de, Qazî Mihemmed hate bidarvekirin. Qaziyê ku aram û rûnazik bû û ji dawiya xwe razî û serbilind bû…. Pêka pêşîn ya xewnê êdî hate danîn, xewna nemir ku bi xwîna mêrxas û pakrewanan geş dibe. Qaziyê ku eger kurdan weke Çeçanan navê şehîd û lehengên xwe li çiyayên xwe bikirana, dê navê wî li mezintirîn û bilindtirîn çiyayê Kurdistanê bûna. Qaziyê Pêşewayê şehîd ê mîna ewreke sipî û bilind ku ji xêr û hezkirin û aştiyê pêve jê nabare. Qaziyê kurdê resen ê ku ji bilî jiyan û xwîna xwe tembînameyeke bê hempa ji nifşên nuh re hişt, ev nifşê ku berbi pêşve gav dide, berev xewna bi xwîna Qazî û hemû pakrewanên kurd ên ku tenê ji Kurdistanê re jiyan û tenê ji boyî wê mirin, rengdayî.

Di salvegera yekemîn Komara Kurdistanê de, Mehabada -eşq û evînê- bila her yek ji me tembînameya Pêşewayê şehîd bixwîne da ku bibîne çendî xewn nêzîk e û çendî xewn şêrîn û giranbuha ye û çiqasî li ber pêkhatinê ye. Ji Mehabad ta bi Mehabad, gelo çi ji hêvî û bicihanîna xewnê xweştir heye?

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Giravên Gola Urmiyê Digihîjin Beravê

Di çend salên borî de, ji ber hişkesaliyê û kêmbûna avê, gola Urmiyê li Rojhilatê Kurdistanê rastî xeterên mezin hatiye û her ku diçe kirîza ziwabûna gola Urmiyê zêdetir derdikeve holê. Îsal, ji ber kêmbûna ava çem û rûbarên ku diherikin golê, çend giravên Gola Urmiyê nêzîkê beravê bûne. Gola Urmiyê duyemîn gola şor a cîhanê tê hesibandin ku bi sedemên cur bi cur di xetera jinavçûnê de ye.

Serbarê vê çendê ku karnas û pispor berdewam hişyariyê li ser kirîza ziwabûna Gola Urmiyê didin, ji ber balnedana berpirsiyarên Komara Îslamî a Îranê û xemsariya wan li dor çarenivîsa vê golê, tê texmînkirin ku heke ev pêvajo bimeşe, di demeke kin de, dê gola Urmiyê tune bibe.



# Angela Merkel Bihêztirîn Jina Cîhanê



Weşana Amerîkî a "**Forbes**", ev 3 sal li serhev in ku **Angela Merkel**, Serok Wezîra Almanyayê weke bihêztirîn jina cîhanê dinasîne. Ev weşane ku ev 5 sal in lîsteya bihêztirîn jinên cîhanê dinasîne, wan jinan di nav lîsteya xwe cih dike ku karîne li rikeberî bi mêran re, kar û derfetên baştir bidest bixin.

Li gor daxuyaniya "Forbes"ê, 100 jinên ku îsal di nava lîsteya han de cih kirine, çavdêriya sermayeke zêdetirî 26 tirilyon Dolarî dikin.

Di lîsteya îsla de, **Angela Merkel**, Serok Wezîra Almanyayê di pileya yekem de cih girtiye.

# Heftemîn Festîvala Şanoya Kurdî Li Seqizê Hate Lidarxistin

Piştî çend salan rawestandin û ragirtina çalakiyên Festîvala Şanoya Seqizê ji aliyê berpirsiyarên rejîma Komara Îslamî ve, bi hewl û cehda endamên Civata Şanoya bajarê Seqizê û xebat û alîkariya dilsoz û kesayetiyên çandî û hunerî, nemaze xemxorên şanoyê li Seqizê, îcaze û derfeta lidarxistina Heftemîn Festîvala Şanoya Seqizê hate wergirtin. Festîval di navbera rojên 25 heta 28'ê Tebaxa 2008'an di hola giştî a îdareya Çanda bajarê Seqizê de dest bi xebatên xwe kir û coşeke germ da hunerhez û evîndarên şanoya Kurdî li Seqizê û mêvanên bajarên din yên Rojhilatê Kurdistanê. Di çarçoveya Heftemîn Festîvala Şanoya Seqizê de 12 komên şanoyê ji bajarên cuda cuda ên Rojhilatê Kurdistanê beşdar bûn.

Di roja yekem a xebatên Heftemîn Festîvala Şanoya Seqizê de, şanoyek ji bajarê Urmiyê bi derhêneriya **Hamid Îsmaîlvend** beşdar bû ku bi awayekî germ û berfireh ji aliyê beşdaran ve hate pêşwazîkirin. Pey re berhema komeke Şanoyê ji bajarê Dêhloranê bi navê **Kejal**, derhêneriya Seîd Xeyrulahî hate nimayîşkirin. Di doma xebatên Heftemîn Festîvala Şanoya Seqizê de, 10 şanoyên din hatin pêşkêşkirin, yek ji wan li bajarê Qoçanê bû.

Hêjayî gotinê ye ku her yek ji wan komên şanoyê li her dever û navçeyên ku tevlî festîvalê bibûn, bi zaravê xwe ê herêmî berhem pêşkêş dikirin û eva jî têra xwe balkêş bû û dewlemendbûna zimanê Kurdî dida xuyakirin.

Di çarçoveya Heftemîn Festîvala Şanoya Seqizê de, çend Pêşangehên Nîgar û wêneyên hunermendên ciwan yên Kurd û hin çalakiyên din ên çandî û hunerî jî hatin lidarxistin.



Pirtûkek nû Û Têra Xwe Balkêş:

# Heqîqet Û Ciwanî




Pirtûka giring û dewlemend ya Heqîqet û Ciwanî, ya nivîskarê Fars, **Babek Ehmedî** bi Kurdî hate çap û belavkirin û pirtûkxaneya Kurdî pê hate dewlemendkirin.

Ev berhema wêjeyî, fikrî û hunerî ji aliyê wergêrê ciwan û xwedî şiyan **Mesûd Babayî** bi Kurdî hatiye wergerandin. Pirtûk 680 rûpel e û Tîraja wê jî 1000 heb e û ji aliyê Dezgeha Lêkolîn û Belavkirinê ya "MUKIRYANI" li Hewlêrê hatiye çapkirin.

Wergêrê law, Mesûd Babayî, pirtûka han bi zimanek hêsan û zelal wergerandiye, bi awayekê ku xwendevan qet hest bi vê yekê nake ku esla pirtûk bi Farisî hatiye nivîsîn.

Mesûd Babayî berê jî berhemeke din a Babek Ehmedî bi navê "Pêkhate û raveya Deq" wergerandibû Kurdî ku di çar bergan de hatiye çap û belavkirin. Pirtûka han xelata duyemîn Festîvala Wêjeyî a Gelawêjê wergirt.

**Desteya Weşana Agirî** mandînebûn û destxweşiyê ji wergêr Mesûd Babayî dike û hêviya serkevtinê jê re dixwaze.